Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 64
31'ê Gulanê
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Roja Cîhanî Ya Zarokan Pîroz Be

Roja înê, 1'ê Hezîrana 2007'an, **Roja Cîhanî ya Zarokan** ye. Zarok nifşa pêşeroja her civakekê ne. Divê hemû hewcedariyê perwerdehiyên ji bo wan bona pêşvebirina civakê werin terxankirin.

Bi vê boneyê em pîrozbahiyên xwe ên germ ji tev zarokên cîhan û Kurdistanê dikin û hêviya rojên geş ji bo wan dikin.

**Desteya Weşana Agirî**



# Gotûbêjên Bêencam



Roja duşem, 28.05.2007'an, piştî 27 salan qutbûna têkiliyan, aqibet gotûbêjên Îran û Amerîkayê di civînek çar seetî de hatin lidarxistin.

Gotûbêj bi serperestiya Nûrî Malikî û du cihgirên wî li bîroya El Malikî li herêma Kesk a Bexdayê û taybet li ser rewşa ewlekariya Îraqê birêve çû.



Van gotûbêjan bala hemû raya giştî ya cîhanê bo aliyê xwe rakişand.

Rayan Kroker, Balyozê Amerîka li Îraqê û nenerê DYA'ê di civîna han de eşkere kir ku me li ser kiryarên têkder û xirab yên wan wekî piştevanî ji terorîstên ku êrîşê dikin ser hêzên hevalbend û herweha hinartina bombeyan bo Îraqê ji bo alozkirina rewşa vî welatî, hişyarî da nûnerên Komara Îslamî. Serokê desteya nûneriya hikûmeta Îslamî ya Îranê di vê civînê de, balyozê wî welatî li Îraqê, Husên Kazimî Qumî bû.

Balyozê Amerîkayê herweha li ser maytêkirina Îranê di Îraqê de da zanîn ku me ji wan re got: **em dizanin ku hûn li Îraqê de çi dikin!**

Gotûbêjên her du welatan bêencam bi dawî hatin û tu demek bo gerra din ya hevdîtinan nehate diyarîkirin.

## Pîroz Be Rojbûna Tîşk Tv





Di 24'ê Gulana 2007'an de "TISHK TV" bû yek salî. Bêguman Tîşk'ê di wê heyamê de gelek xizmetên binirx, hêja û berçav kirine.

Em wekî **Desteya Weşana Agirî** yeksaliya Tîşk Tv ji hemû neteweya Kurd û bi taybet xebatkarên zehmetkêş ên vê televîzyona kurdî pîroz dikin. Hêviya me berdewamî, serkevtin û temenk dirêj di kar û xebata wan de ye...

## Grûba Kurmancî Bû 20 Salî





Grûba Kurmancî ya Enstituya Kurdî ya Parîsê li Herêma Kurdistanê li Bajarê Duhokê civîna xwe ya 40. li dar xist û 20 saliya xwe pîroz kir.

Rûpela 11

## Binpêkirina Mafên Mirovan Di Îran, Turkiye Û Sûriyê De

Rûpela 2



# Peyama Pîrozbahiya Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê Ji Bo Dr. Birnard Koşner


Dr. Bernard Koşner - Mistefa Hicrî

*Bi boneya wergirtina berpirsiyariya Wezareta Karê Derve Ya Fransayê ji aliyê Dr. Bernard Koşner dostê nêzîk yê Kurdan û şehîdê rêber Dr. Qasimlo, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, rêzdar Mistefa Hicrî peyamek pîrozbahiyê şand ku eva deqa wê ye:*

**Cenabê Wezîr û hevalê xweştevî!**

Li ser navê rêberiya PDK Îranê û gelê Kurd li Kurdistana Îranê, pîrozbahiyê bi boneya sipartina vê berpirsyariyê ji we dikim û hêviya serkevtinê ji we re dixwazim.

Cenabê wezîr! Bi nasyariyekê ku me ji hogiriya kûr a we û ji bo nirx û bihayên bilind ên wekî aştî, azadî, demokrasî, mafê mirovan û dadperweriyê heye, em Kurdên demokrat ku ji bo bi cihanîna wan nirxan dixebitin, li ser vê baweriyê ne, dîplomasiya Fransayê di bin çavedêriya we yê birêz de, bêtir ji berê li xebat û tekoşîna neteweyên Îranê û bo nimûne gelê Kurd ku di bin serkut û tund û tûjiya rejîma dîktator û sedsala navîn de ye, dê berevaniyê bike.

**Mistefa Hicrî**
**Sekreterê Giştî yê PDK Îranê**
**18.05.2007**

---

Bangawaza Partî û Aliyên Siyasî Yên Kurd û Kurdistanî Bo Raya Giştî ya Cîhanê:

# "Nehêlin ku Turkiye Tadaxulê Kurdistana BaşûrBike!..."

Herwekî dizanin, Serokerkanê Turk, berî mehek û nîvan gotibû ku "Hikûmeta Herêma Kurdistanê alîkariya terorîstan dike. Arteşa me xwe ji bo mudaxeleyê amade kiriye û divê mudaxeleya serbazî bê kirinê. Lê belê ji bo vî karî pêwîst e Hikûmet û Parlamento, biryara siyasî bigirin."

Paş êrîşeka xwekujî ya dawî li Enqere, Serokerkanê Turkiyê gotina xwe dubare kir û Hikûmeta Herêma Kurdistanê dîsa wekî alîkarê terorîstan destnîşan kir.

Piştî axaftina Serokerkanê Turkiyê, şerê ne îlankirî, li hemberê Hikûmeta Herêma Kurdistanê tundtir bû.

Çalakî û leşkerkêşiya Arteşa Turk li ser tixûbên Turkiye- Îraqê herku diçe, zêdetir dibe.

Li Medyayê Turkiyê êrîşeka bê şermane û ne însanî heye li ser Herêma Kurdistan û Serokatiya Siyasî ya wê.

Hikûmeta Partiya Dad û Pêşveçûnê (AKP) jî di warê siyasî û dîplomasiyê de kete kar û çalakiya xwe roj bi roj zêdetir dike.

Hêcet û mihaneya karbidestên sîvîl û serbazî yên Turkiyê ji bona vê êrîşê, hebûna bingehên PKK'ê li Kurdistana Başûr e.

Lê belê, guman têda nîne armanca sereke ya dewleta Turk, pêşîlêgirtina geşkirina Hikûmeta Herêma Kurdistanê, di warê siyasî, aborî û civakî de ye.

Armanceka sereke ya dinê ya dewleta Turk, pêşîlêgirtina cîbecîkirina xala 140'an ya Destûra Îraqê ye ku bi piraniya dengên xelkê Îraqê hatiye qebûlkirinê.

Guman têda nîne, ku tedaxula dewleta Turk, binpêkirina serwerî û serbixweyî ya dewleta Îraqê ye, tedaxula Turkiyê, ne tenê pirsgirêkan çareser nake û nabe alîkar ji bo aşîtiya navçeyê, her wisa rewşa siyasî ya Rojhilata Navîn aloztir dike.

Em partî û aliyên siyasî yên Kurd û Kurdistanî, ji Dewletên Yekbûyî yên Amerîka (DYA), ji Yekîtiya Ewropa (YE) û dewletên endam, ji hevpeymana NATO, ji dezgehên mafên mirov û humanist yên navnetewî dixwazin, ku pêşiya tedaxula dewleta Turk û dewletên din yên cîran di karê navxweyî yê Îraqê da bigirin, nehêlin êrîşa Kurdistana Başûr bikin.

Em partî û rexistinên siyasî yên Kurd û Kurdistanî ji DYA, YE, NATO û dezgehên navnetewî dixwazin, ku ji bo avadankirina Îraqeka demokrat û federal piştgiriya hêzên demokrat û aşitîxwaz ên vî welatî bikin.

Em banga DYA, YE, NATO û dezgeyên navnetewî dikin, ku piştgiriya Hikûmeta Herêma Kurdistanê bikin, hewl bidin ku kêşeya Kurd li seranserê Kurdistanê bi rêya diyalog û bi awayê aştiyane bê çareserkirin.

**27.05.2007**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Partiya Sosyalîsta Kurdistan-PSK**
**Partiya Demokrata Kurdistan-PDK (Bakur)**
**Partiya Demokrat ya Kurd Li Sûrî (Elpartî)**
**Partiya Peşverûya Demokrat ya Kurd Li Sûriyê**
**Partiya Yekîtiya Demokrat ya Kurd Li Sûriyê**
**Partiya Welatparêzên Demokrat ên Kurdistan-PWD**
**Partiya Azadî ya Kurd Li Sûriyê**
**Partiya Yekîtiya Kurd Li Sûriyê**
**Rêkevtina Demokrat a Kurd li Sûriyê**
**Partî Azadî Kurdistan-PAK**
**Rêxistina Xebata Kurdistana Îranê**

## Binpêkirina Mafên Mirovan Di Îran, Turkiye Û Sûriyê De




Rêxistina Efûya Navneteweyî rapora salane ya xwe weşand û têde welatên Îran, Sûriye û Turkiye ji ber ne parastina mafên mirovan, wekî nebûna azazdiya raderbirîn, nebûna azadiya kombûn û nemaze kuştina neyaran bi tundî rexne kir.

Herweha EN xurtbûna hesasiyetên navbera Îslamî û Cihûyan li gellek welatan de tîne ziman.

Rapor li derheqa Îranê de bas ji xirabtirbûna rewşa mafên mirovan dike û zext û givaşên li ser kêmaniyên neteweyî – olî, girûpên mesebî, nebûna azadiya raderbirînê û ... dike û awayê birêveçûna dadgehan, îşkenceya girtiyan û derkirina cezayên giran û nemirovî di wî welatî de xiste ber rexne û lomeyên xwe.

# Lênihêrînek Bi Ser Kongireya Neteweyên Îrana Federal, Erk Û Wezîfeyên Wê Yên Pêşerojê

Erfan Rehnimûn
W; Omîd Esxeran

Herwekî em dizanin, Kongireya Netweyên Îrana Federal, li gor hewcehiyek sehpêkirî û dîrokî di 20.02.2005'an de, li welatê Îngilistanê de hate damezrandinê û beşeke berbiçav ji wan partî û rêxistinên neteweyî yên gelên bindest ên Îranê ku li ser wê çendê hevdeng û hevra bûn ku welatê Îranê, welatek e ku ji çend neteweyan pêk hatiye û bê liberçavgirtina wê pirsê, ne demokrasî di wî welatî de cîgir dibe û ne divêt çavnihêriya bi dawî hatina wan şer û pevçûnan bikin ku li dirêjahiya dîroka wî welatî de weke pîvaneke siyasî – coxrafî bi demar û rihên wî welatî de çûye xwarê, di bin siya xwe de girt.

Kongireya han di rewş û zirûfekê de hate nava rikeberanêya siyasî ya Îranê de, ku guherînek sehpêkirî û girîng him di asta herêmê û him di asta navneteweyî de hate holê. Yanî di wan çend salên borî de, pirsgirêka neteweyî, zulm û zoriya zal bi ser wan neteweyan, bi awayek roh û eşkere hate nava rojeva siyasî ya hundirê Îranê û tewr(heta) karbidestên payebilind ên rejîmê jî nekarîn haşayê ji vê pirsgirêkê bikin û ji rêyên cur bi cur ve bi awayek berevaj îşare bi vê pirsgirêkê kirine. Bûna pirseke objiktîv û sehpêkirî li biyava siyasî – civakî a Îranê de, bizav û berxwedanên berfireh ên Kurdan li Kurdistanê, Turkmenên Azerbaycanî, Erebên Ehwazê û gelê Belûç, di heyamê wan çend salên borî de, bûn sedema vê çendê ku pirsgirêka neteweyî a neteweyên çewisandî ên Îranê, tixûbên coxrafî ên Îranê bibezîne û ji aliyê navendên parastina mafê mirovan û welatên bihêz ve bi awayekê di çarçoveya berjewendiyên wan de, qala wan were kirinê. Wana bi giştî û pejirandina nûnerên KNÎF ji aliyê navendên biryarder weke YE'ê, Kongires û Senaya Amerîkayê û guhgirtin ji bîr û raman û pêşniyarên wan, belgeyên rohn û eşkere ne bona vê rastiya haşalênekirî ku Kongireya han, wek hêzekê, karîna wê çendê heye ku bibe alternatîva rejîma Komara Îslamî ya Îranê, yan aliyê kêm, bibe yek ji stûnên qahîm û xurt a wê alternatîvê ku tê çavnihêrkirin di pêşerojê de were rojeva siyasî ya Îranê.

**Di asta hundirîn de:**

KNÎF, weke platforma neteweyên çewisandî ên Îranê, hewce ye bi darêtina bernameyeke têraverok û bihêz, bi awayekî pratîkî, bizav û tevgerên neteweyên bindest di navxweyê Îranê de dor hev kom bike û şêwazek ji hevkariya pratîkî di navbera wan de pêk bîne.

Em di heyamên cuda cuda de dibînin ku her carê yek ji neteweyên Îranê bi merema dabînkirina xwestek û daxwazên demokratîk û neteweyî ên xwe, tên ser şeqaman, lê mixabin em gelek bi kêmî dibînin dema ku yek ji neteweyên bindest xwenîşandanê lidardixin, neteweyên din bi kiryar piştevaniyê ji wan nakin. Eva yek ji xalên qels ên Konigreya Neteweyên Îrana Federal di warê pratîkî de ye.

Heke partî û rêxistinên avaker ên Kongireya han, bikarin li navxweyê Îranê de, bizavên neteweyî ên belawela li dor hev kom bike û di çarçoveya armancên diyarîkirî de tevger û xwenîşandanên hevbeş lidar bixin, ji aliyekê ve him qursahiya vê kongireyê li hundirê welat de jor de diçe û him jî dikare bi awayekê rejîma azadîkuj a Komara Îslamî ber bi paşve bikişîne û ji aliyek din jî wê rastiyê ji



navendên biryarder ên navneteweyî re eyan bike ku wê kongireyê bi awayeke piratîk, karîna pêkanîna guherînan di pirsgirêkên siyasî ên Îranê de heye û eva jî rasterast dibe sedema vê çendê ku rol û bandora wê kongireyê di navendên biryader de jor de biçe.

**Asta opozîsyona Îranê**

Rohn û eşkere ye ku niha Kongireya Neteweyên Îrana Federal yek ji stûnên bihêz ên opozîsyona dijber ya Komara Îslamî ya Îranê ye. Hewce ye Kongireya Neteweyên Îrana Federal diyaloga sîstematîk û avaker, bi merema gihîştin bi alternatîveke baş ji bo rejîma olîgarişî a Melayan, tevî partî û rêxistinên derveyî wê kongireyê dest pê bike. Divêt kongire di pêvajoya diyalogê de, wan partî û rêxistinan bîne ser vê baweriyê ku sîstema pêşeroja Îranê, nikare bi bê dabînbûna mafên berheq ên neteweyên çewisandî ên Îranê, demokrat be û ne jî faktorek be bona ewlehî û tenahiya siyasî û civakî di pêşeroja Îranê de.

Hewce ye kongire, ji bilî kanalîzekirina xebata neteweyên çewisandî ên Îranê, cehd û xebatê bike ku hîmê opozîsyonek demokrat û seranserî danê, bê dana ferq û cudahiyek di navbera partî û rêxistinek demokrat bi merema gihîştin bi platformek hevbeş û demokratîk ku tê de rohn û eşkere qala tim arîşe û kirîzên civaka Îranê û rêçareyên zanistî û rastbînane jê re hatibe destnîşankirin.

**Asta navneteweyî**

Hewce ye Kongireya Neteweyên Îrana Federal di asta navneteweyî de, hewlên xwe ên dîplomasiyê xurttir bike û di wan hewl û xebatan de, du erkên bingehîn bigire stûyê xwe:

1- Vê rastiyê nîşanî navendên biryarder ên navneteweyî bide ku pêkhateya civaka Îranê, pêkhateyek yekdest û yekreng nine, belku pêkhateyeke pirreng e ku aliyê kêm ji şeş neteweyên Kurd, Azerî, Ereb, Belûç, Fars û çend girûpên din yên etnîkî pêk hatiye.

2- Hewce ye ku ew Kongireye balê bikişîne ser asta têgihîştina siyasî û hişyariya neteweyî a neteweyên çewisandî ên Îranê û bi belge û dukomentan, xwestek û daxwazên neteweyî ên wan bîne holê û li ser vê çendê îsrarê bike ku bê dabînbûna xwestek û daxwazên neteweyî, mirovî û demokratîk ên neteweyên bindest ên Îranê, ewlehî û tenahiya siyasî û civakî nemikûn e û bi dabînbûna ew xwestek û daxwazan ne tenê valahiya desthilat û lawazabûna rejîma siyasî ya pêşeroja Îranê, belku berevajî vê çendê, dikare bibe fakterek bihêz ji bo ewlehî û tenahiyê di Îranê û tewr herêma hestiyar a Rojhilata Navîn de.

Bi baldan bi temenê kurt û du salî yê Kongireya Neteweyên Îrana Federal, heke em lênihîrînekê ji karnameya wê Kongireyê re bikin ji me re eyan dibe ku KNÎF'ê heya niha çend gav berbipêşve avêtine û tê çavnihêrîkirinê ku di pêşerojê de gavên baştir û bibandortir bavêje. Yek ji gavên Kongireya Neteweyên Îrana Federal ên vê dawiyê bi merema xurt û berfirehbûna zêdetir, pêkhatina tayê Norwejê a vê kongireyê bû. Weke di rapora Kongireya Neteweyên Îrana Federal, tayê Norwejê de hatiye: Roja înê, 27.04.2007'an, di civînekê de ku li bîroya PDK Îranê li welatê Norwejê de hate lidarxistinê, tayê Norwejê a vê kongireyê bi fermî hate damezrandin ku partiyên siyasî ên beşdar di vê civînê de pêkhatîbûn ji: PDK Îranê, Eniya Hevgirtî a Belûçistan, Partiya Azad ya Kurdistanê, Partiya Gelê Belûçistanê, Partiya Hevpêwendiya Demokratîk a Ehwazê,

Bizava Neteweyî a Belûçistanê û Komeleya Şoreşger ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê.

Her wiha li doma kar û xebatên vê dawiyê ên Kongireya Neteweyên Îrana Federal li bervara 28.04.2007’an, civîna doreyî a wê kongireyê li bajarê Londonê de hate lidarxistinê. Di wê civînê de, rapora kar û çalakiyên sê mehên bihurî ên KNÎF hate nîqaşkirin û qala xalên qels û xurt ên kongireyê hate kirinê û her wiha bernameya karê kongireyê ji bo pêşerojê hate destnîşankirinê.

Her di wê civînê de, piştî bas û nîqaşek zaf li ser daxwaza çend partî û rêxistinên din bona endametî di wê kongireyê de, sê rêxsitin bi tevahiya dengan weke endamên wê kongireyê hatin qebûlkirin ku pêkhatibûn ji: **Partiya Yekîtiya Bextiyarî a Loristanê**, **Bizava Neteweyî a Turkemenistana Îranê** û **Bizava neteweyî – demokratîk a Turkmen**.

Xala cihê baldanê di wê civînê de, eva bû ku taqima Mela Hesen Restigar jî ji rêya yek ji endamên kongireyê ve, daxwaza endambûn di vê kongireyê de kiribûn ku her weke çavnihêrî dihat kirinê, ew daxwaza wan bi dengdaneke giştî hate redkirinê. Eva di demekê de bû ku çaxê ku ew taqime di nava partiyê de bûn, hemû gavekê dixwestin ku KNÎF’ê kêmpûte û nênirx nîşan bidin û tewr red jî dikirin, lê niha ku tenê mane, bi hemû awayekê hewlê didin ku bibin endamê wê kongireyê! nepejirandina ew daxwaza wan di civîna KNÎF’ê de, ji aliyekê nîşaneya lawazbûna wan e û ji aliyek din jî wan haydar dike ku heke bixwazin bi fermî bibin endamê Kongireya Neteweyên Îrana Federal, divêt di destpêkê de ew navê ku li ser xwe danîne, biguherin, cehdê bikin ku siyasetek rohn, eşkere û berpirsane bigirin pêşiya xwe. Niha ku hevrêyên me ên berê, bi gotina wan, xwe ji bo yekemîn kongireya piştî cudabûn ji PDK Îranê amade dikin, di cî de ye ku mêzeyî kiryarên xwe ên berê bikin û tu careke din xweliyê nekin nav çavên xelkê Kurdistanê û navek jêhatî û hêja ji xwe re hilbijêrin û siyaseteke ratbînane û neteweyî bigirn pêş xwe. Di rewşeke han de, firîqet(erxayîn) dibin ku PDK Îranê, dibe dostê wan ê herî nêzîk û dê hewlê bide ku wan ji sazî û komeleyên siyasî û neteweyî re binasîne û heta ku ji destê PDK Îranê tê, piştevaniyê ji wan bike. Lê heke her wan siyasetên xwe bidomînin û rêya dijberiyê bigirn ber xwe, di destpêkê de bi xwe dê zirarê bibînin û tu destkevtek ji bilî ketine kêlek û perawêzê û terîk(munzewî)ketina bidest naxin.

PDK Îranê, çavnihêriya vê çendê ji hevalên berê dike ku di gava yekem de, seh bi berpirsiyariyê bikin û gavên rastbînane bavêjin û karekê nekin ku bibe sedema dudilî û bişikbûna wan û herwiha terîk(munzewî)ketina zêdetir a wan.

# 12 Partiyên Kurdî Tawana Terorîstî Ya Gundê Qerlosê Şermezar Kirin

Di doma wan tawan û cinayetên rojane yên terorîstî li dijî xortên neteweya me li herêmên derveyî desthilatdariya Hikûmeta Herêma Kurdistanê diafirînin, 15 kesên din ji xortên neteweya me di xwînê de hatin gevizandin.

Sibêdeya roja yekşem, 19.05.2007’an, hejmarek çekdar ku kincên hêzên ewlekairya Hikûmeta Îraqê lixwe kiribûn, nişkêve êrîşê dikin bo ser gundê Qerlos a nahya Mendelî li Başûrê Rojhilatê Parêzgeha Kerkûkê.

Di vê kiryarê de, terorîst, akinciyên wî gundî bi çek û silahên xwe didin ber guleyan û di encamê de ew 15 kes hatin kuştin û du kesên din jî birîndar bûn.

Ew tawana dijî mirovî, doma zext û komployên dujmin û neyarên Kurd û Kurdistanê ji bo li ser cî rakirina xortên neteweya me li ser erd û axa bav û kalên xwe ye û awayekî din ya terhîl û veguhastina Kurdistaniyan e ku hikûmetên yek li pey yekê ên Îraq yên berê bo dema dehan salan pêre mijûl ketibûn.

Wekî partî û aliyên siyasî yên Kurd û Kurdistanê ku me ev daxuyaniya wajo kiriye, serbarê mehkûm û şermezarkirina wê tawanê û hevderdî û hevxemî tevî malbat û xizm û kesên ew şehîdên xedirlêkirî, em daxwazê ji hikûmeta Îraqa Federal dikin, heçiqas zûrtir cihên hewce bona eşkerekirina encamderên tawanê û cezakirina van bigire ber xwe û rê û pêşiya kuştina xortên neteweya Kurd li herêmên derveyî Herêma Kurdistanê bigire. Her di vê demê de jî em piştrast û erxayîn in ku rêya pêkanîna ewlekarî û tenahiya Kurdên derveyî Herêma Kurdistanê, tenê cîbicîkirina madeya 140’an ya destûra herdemî ya Îraqa Federal û vegerandina wan deverên cudakirî bo ser Herêma Kurdistanê ye.

**21.05.2007**

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**

**Partiya Sosyalîsta Kurdistanê(PSK)**

**Partiya Azadiya Kurdistanê(PAK)**

**Partiya Pêşverû ya Demokrat a Kurd li Sûriyê**

**Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê(El Partî)**

**Partiya Demokrat a Kurdistana Bakûr(PDK – Bakûr)**

**Partiya Yekîtiya Demokrat ya Kurd li Sûriyê**

**Rêxistina Xebata Kurdistana Îranê**

**Rêkevtina Demokrat ya Kurd li Sûriyê(Wefaq)**

**Partiya Azadiya Kurd li Sûriyê**

**Partiya Welatparêzên Kurdistanê(PWD)**

**Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê**

# Komîteya Kongireya Neteweyên Îrana Federal Li Danîmarkê Ava Bû




Roja çarşem, 16.05.2007’an, yekemîn civîna Komîteya Kongireya Neteweyên Îrana Federal li Danîmarkê pêkhat.

Beşdarên civînê bi awayê jêr de hatî bûn:

1- Seîd Sultanpûr(PDK Îranê)

2- Emîr Misbah(Komele – Rêxistina Şoreşgerên Zehmetkêş yên Kurdistana Îranê)

3- Elî Ehmedî(PAK)

4- Yasîn Ehwazî(Partiya Demokratîk a Ehwazê)

5- Mihemed Belûç(Partiya Gel a Belûçistanê)

Di vê civînê de biryara domandina rê û nasandina siyasetên Kongireya Neteweyên Îrana Federal bi rêxistin û organên dewletî û nedewletî(sivîl) yên Skandînawiyê, nemaze Danîmarkê, hate girtin.

Avabûna komîteya Danîmarkê ku tayek ji Kongireya cîgirê rejîma Melayan e û ji 16 partiyên neteweyên bêdesthilat pêkhatiye, xwezyarê ji hev nêzîkbûna pitir a neteweyên Îranê li dor vê kongireyê (Kongireya Neteweyên Îrana Federal) û siyasetên wê yên demokratîk û tevgir e.

Ji bo pêwendiyên bêtir:
**danmark@iranfederal.org**

**Kongireya Neteweyên Îrana Federal – Komîteya Danîmarkê**
**17.05.2007**

# Li Ser Navê "Rojhilata Navîn Di Laqirdiyên Siyasî Yên Îran Û Amerîkayê De" Konferansek Ji Bo Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê



Roja duşem, 21.05.2007'an, li ser gaziya birêz **Dr. Salih**, Serokê Zankoya Zanistên Siyasî yê Zanîngeha Selahedîn, konferansek li ser navê **Rojhilata Navîn di laqirdeyên siyasî yên Îran û Amerîkayê de**, ji bo birêz Mistefa Hicrî, Sekrterê Giştî yê PDK Îranê, hate lidarxistin.

Di destpêka Konferansê de Dr. Salih, piştî bixêrhatin ji birêz Hicrî, bi kurtî bal kişande ser kesayetiya Sekreterê Giştî yê PDK Îranê.

Di doma konferansê de birêz Hicrî, li ser giraniya Rojhilata Navîn û hilkevta coxrafiya vê herêmê axivî û got: "Bi sedema taybetmendiyên jeopolîtîk û jeostratejîkî, Rojhilata Navîn bandoreke girîng û berbiçav li ser sîstema biryardanê ya cîhanî, heye. Bi vî awayî ye jî ku tê dîtin ew herême li serdemê Soviyetê û şerê sar de meydana hevkariyê û milmilanê di navbera Soviyet û Amerîkayê de bûye û her yek ji wan du xwedî hêzan cehd kirine ku pêgeh û bandora desthilata xwe di vê herêmê de berfirehtir bikin. Lê piştî hilweşiyana Soviyetê û nemana şerê sar, derfet û zeman bi qazancê Amerîkayê guherî".

Her wiha Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, di axavtinên xwe de hevdem tevî îşarepêkirinê bi siyasetên Komara Îslamî ya Îranê her di destpêka hatina serkara xwe de got: "Her di destpêkê de Komara Îslamî bi vê hizrê hate ser kar ku Împeratoriya Îslamî damezrîne û ji bo vê armanca xwe jî siyaseta şandina Şoreşa Îslamî da pêşiya xwe". Mistefa Hicrî, her wiha hikûmeta Komara Îslamî rejîmeke serdemê sedsala navîn hesiband ku nikare bersiva daxwazaiyên gelên Îranê bide û rejîmek e ku pirgirêk û kirîzan diafirîne û kirîzên wê roj bo rojê zêdetir dibin".

Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, her wiha ron kir ku bi sedema wan siyasetên xwe niha rejîma Komara Îslamî ya Îranê di hundir de jî tenê ji aliyê wan kesan ve tê piştevanîkirin ku berjewendiyên wan bi rejîmê ve hatine girêdan û di herêmê de jî tenê çend girûpên terorîstî pişta rejîmê digirin, ji ber vê çendê ye ku rejîmekî wiha karîna hevkariyê tevî Amerîkayê tuna be.

Birêz Mistefa Hicrî, di pareke din a axavtinên xwe de îşare bi pirsgirêk û astengên li ser rêya Amerîkayê di herêmê de kir û li ser wê yekê tekez kir ku divêt gelên azadîxwaz, bi micidî li hember Komara Îslamî û serberedayîbûna vê de bisekinin.

Di dawiyê de birêz Hicrî, bersiva pirsiyarên xwendekarên beşdar di konrferasê bi hûrî da.

# Gerrek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

***16.05.1983:*** Piştî şerekî dijwar di navbera Ereban û Îsraîlê de, welatê Lubnanê lihevhatina aştiyê tevî Îsraîlê pejirand.

***16.05.2006:*** Piştî 12 salan nebûna pêwendiyan di navbera Amerîka û Lîbyayê seba bernameyên Etomî û terorîstbûna wî welatî de, Lîbyayê şertên Amerîkayê pejirandin û têkiliya siyasî di navbera wan 2 welatan dest pê kir.

***17.05.1639:*** Peymana diyarîkirina sînoran di navbera dewletên Osmanî û Sefewiyan bi navê peymana **Zehaw**î hate îmzakirin û bi kiryar Kurdistan hate parçekirin.

***17.05.1984:*** Hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê êrîş kirin ser gundên **Miley Talesor** û **Banrasî** û tevî Pêşmergeyên PDK Îranê ji hêzên Şerîfzade û Şehîdên Dîwandere hember bûn. Di encama şerekî giran de 100 kes ji hêzên dijmin hatin kuştin û mixabin 7 Pêşmerge bi wan navane şehîd bûn: 1.**Wefa Erkan**, 2.**Yedula Lotfî**, 3. **Yehya Mihemedî**, 4.**Hebîb Kerempûr**, 5.**Yûsifula Şaweysî**, 6.**Hesen Muradî** û 7. **Seyîd Xusro Husênî**.

***17.05.1992:*** Bo cara yekemîn di dîroka gelê Kurd de, yekemîn televîzyona Kurdî bi navê **KURDISTAN TV** dest bi weşanê kir ku dûr ji siyaseta rejîma desthilatdar a Bees a Îraqê di xizmeta neteweya Kurd de bû.

***18.05.1804:*** Napelon bû Împeratorê Fransayê.

***18.05.1951:*** Binkeya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî li bajarê "New York"ê hate vekirin.

***18.05.1954:*** Komîsyona Mafê Mirovan ya Ewropayê hate avakirin.

***18.05.1984:*** **Ebdula Behramî**, endamê Komîteya Navendî yê PDK Îranê tevî 3 Pêşmergeyên din bi navên Enwer Şîlanan, Mihemed Emîn û Sidîq endamê nepenî di şerê tevî hêzên rejîma Komara Îslamî li devera Başûrê Kurdistana Îranê şehîd bûn.

***19.05.1991:*** Hilbijartina endamên Parlamentoya Kurdistana Îraqê birêve çû. Parlemanê sîstema Federalî pejirnad.

***20.05.2006:*** Piştî rûxandina rejîma Bees a Îraqê, dewleta fermî û hilbijartî ya Îraqê hate îlankirin û Cewad Malikî ê Serok Wezîr kabîneya xwe da nasandin.

***21.05.1889:*** Rêxistina Tealî û Tereqî hate damezrandin.

***21.05.1919:*** Şêx Mehmûdê Hefîd li dijî hêzên Îngilîstanê şerekî mezin organîze kir û piraniya herêmên parêzgeha Silêmaniyê ji destê Birîtaniyan azad kir.

***21.05.1981:*** **Fransova Mîtran** yek ji dostên herî nêzîk û wefadar ê neteweya Kurd bû Serok Komarê Fransayê.

***21.05.1991:*** Recîv Gandî bi sedema teqîna bombeyekê hate kuştin.

***22.05.1941:*** Leşkerên Îngilîstanê li Hindistanê ve ji axa Îranê derbas bûn û gihîştin Îraqê û bajarê Bexdayê girtin.

***22.05.1980:*** Destpêka dorpêça aborî li ser rejîma Komara Îslamî ya Îranê ji aliyê Amerîka ve.

***22.05.1990:*** Piştî çendîn salan jihevcudabûnê, herdu parên Yemenên Bakûr û Başûr hev girtin û Komara Yemenê pêk anîn.

***23.05.1994:*** Bi sedema qerebalixiyê di dema tiafa Hecê de, bêtir ji 300 kes ji tiafçî ketin ber dest û piyan û hatin kuştin.

***23.05.1997:*** Mihemed Xatemî bi hindek dirûşmên xelkxapên û derewîn bû serokomarê rejîma Îslamî a Îranê.

***24.05.1985:*** **Îbrahîm Şêxalî**, yek ji fermanderên qehreman yê PDK Îranê ji Hêza Şehîd NIHO, di şerê tevî hêzên rejîmê de, li gundê Cêrme Bêtkare şehîd bû.

***24.05.2005:*** Komîteya Rojhilat ya Enternasyonala Sosyalîst pêk hat. Di vê civînê de, pileya endambûna PDK Îranê ji endamê zêrevan bû endamê Şêwirmend (ravêjkar).

***24.05.2006:*** Televîzyona Kurdî a **"TISHK"** bernameyên xwe yên test dest pê kirin.

***25.05.1941:*** Bi sedema çêbûna bahozeke xurt li Hindistanê, bêtirî 50 000 kes bûne qurbanî.

***25.05.1946:*** Urdin di bin îstimara Birîtanyayê derket û bû welatek serbixwe.

***25.05.1989:*** Mîxayîl Gorbaçof bû Serok Komarê Yekîtiya Soviyeta berê.

***25.05.2005:*** **Şêx Mihemed Meşoqê Xeznewî**, kesayetiyê olî, parêzvanê mafê mirovan û welatparêzê Kurd ji aliyê dezgeha Îstixbarata rejîma Sûriyê ve hate revandin û piştî çend rojan meytê wî li cihekê hate peydakirin.

***26.05.1908:*** Peydakirina yekemîn çala niftê li Îranê, di bajarê "Mescid Silêman"ê de.

***27.05.1999:*** Dadgeha Navneteweyî a Laheyê, biryara girtina Slobodan Mîlosovîç, bi tawan komkujiyê li Bosnî û Herzgowînê der kir.

***28.05.1951:*** Rêxistina Efûya Navneteweyî pêk hat.

***28.05.1963:*** Bi sedema çêbûna bahozek xurt li Bengladeşê, bêtir ji 26000 kes hatin kuştin.

***28.05.1995:*** Hunermendê navdar û dengxweş yê Kurd, **Tehsîn Taha** koça dawiyê kir.

***28.05.1999:*** Rûsya bû endamê Rêxistina "NATO"yê.

***29.05.2006:*** Civîna Grûba Karê Kurdan ya Enternasyonala Sosyalîst li bajarê Dokan li nêzîk Silêmaniyê hate lidarxistin. Şanda PDK Îranê bi serokatiya rêzdar Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî têde beşdar bû.

***30.05.1955:*** Welatê Tonesê serxwebûna xwe îlan kir.

***30.05.1959:*** Îraq ji peymana leşkerî ya deverê derket û xwe wekî welatek "ne berpirsiyar" ragehand.

***30.05.1981:*** Ronald Rêygan, Serok Komarê Amerîka kete ber êrîşa kesekê û bi derbeya guleyan birînar bû.

***31.05:*** Roja Cîhanî ya qedexebûna Cixareyê yan berlêgirtin ji kişandina cixareyê.

# Hiqûqên Bingehîn, Rexne Û Şiroveya Qanûna Bingehîn Ya Îranê

**Beşa 1**

**Seyîd Mihemed Qurdoyî Mîlan** **W; Dara Natiq**



Di şibata sala 1979'an de, yek ji rejîmên herî totalîtar yên siyasî û îdeolojîk carek din siya biyom a xwe xiste ser gelên Îranê û dest bi ser wî welatî de girt ku ew yeka jî di rojhejmara siyasî a cîhanê de tu car nahê jibîrkirin.

Mijara hiqûqên bingehîn dest bi vekolîna şekl û awayên cur bi cur yên desthilatê kiriye û di warê çawaniya pêkanîn û avakirina hêz û berheqiya wê di civakê de dixebite. Bi gotineke din hiqûqên bingehîn di warê xwandin û dahûrandina dozên siyasî yên cihgir di civakê de, bi mifah wergirtin ji alev û awayên cur bi cur yên hiqûqî dixebite û dest bi nirxandina pêwendiyên siyasî yên di navbera desthilat û xelkê û herwisa çawaniya pêkanîn û avakirina hêza rewa û berheq di çarçoveya pergaleke siyasî de dike û radiweste.

Xwendevanên hêja, berî vê çendê ku em bas ji mijara xwe ya sereke bikin, hewce ye ku em di destpêkê de qala çend xalên girîng û balkêş bikin.

1- Tevahiya civakên mirovî bo birêvebirina kar û barên civakî hewcehî bi hebûna dewlet û hikûmetê, bona birêvebirina kar û barên civakê hene. Hebûna dewlet û cihgirkirina hikûmetê di civakê de, ew qas pêwîst e ku tu yek ji Fîlesof û şarezayên siyasî yên cîhanê nekarîne bûna wê înkar bikin û tev şîretên olî ên xwediyê hizr û ramanên azadîxwazane yên cîhanê îşare bi girîngî û hewcehdariya pêkanîna dewlet û cihgirkirina hikûmetê di civakê de kirine. Herwisa zana û pisporên warê hiqûqî, pêkanîna hikûmetekê di civakê de bi karekî hewce û bilez dihesibînin, îca ew dewlet xwedî edalet be yan dîktator.

2- Her dewletek bo îdarekirina civaka xwe hewcehî bi alavên cur bi cur heye û bi taybetî îdarekirina civakê pêwîstî bi hebêna bernameyeke dîharîkirî heye, herwisa hemû bernameyek bo gihîştin bi armancên dîharîkiriye xwe tê darêtin.

Lewra hemû hikûmetek diviya armancên xwe bide xuyakirin. Bo birêvebirin û gihîştin bi her Armancekê bê şik jêderên malî pir lazim e û herwisa rêyên dîharîkirina dahat û çawaniya diyarîkirina dahatan û birêvebirina bernameyan divêt bi tewahî bihê xuyakirin û bi awayekî hûrbîrane were darêtin. Hebûna organên berevanî û ewlehiyê ji hewcehiyên din yên hikêmet û civakê ne. Tiştekî xwezayî ye ku her civak û welatek xwediyê hin neyarên derveyî be û herwisa parek ji xelkê wê bi pêkanîna hin kiryarên nebaş ewlehiya wê civakê tevlîhev bikin û jiyana xelkê wê civakê rastî hin aloziyan bikin. Lê di vir de ye ku hewcehiya avakirina organên berevanî û ewlehiyê bi başî tê xuyakirin. Hebûna pitansiyêlekî jêhat û pispor bo birêvebirina wan pirojane û yan endambûn di rêxistinên hikûmetî de, bo cî bi cî kirina her yek ji erkên baskirî pir pêwîst e ku di rastî de tu desthilatek bi bêy hebûna hêzekî jêhat û pispor nikare xwediyê birêvebirina rast û usulî a bername û pirojeyên xwe be. Cuda ji wane mifah wergirtin ji rêxistin û sîstemên zêrevaniyê karekî pêwîst e û ew rêxistina divêt çavdêriyê bi ser kar û kiryarên hêza karî a hikûmetê û herwisa çawaniya birêvebirina bername û kifşkirina xalên lawaz û bêhêz yên sîstema hikûmetî bike û herwisa ji rêya " xelatkirin û sexerlêbirin" a wê hêza karî, pêş ji fesadî, riziyok û gelek kirinên nebaş bigire. Lê ew çende jî bo birêvebirina bername gihîştin bi armancên dîharîkirî bi bandor dibe. Xwandevanên hêja di vira de ye ku gava mirov dêna xwe dide hemû ew xalên ku me berê basê wan kir, divêt hemû hikûmetek bo birêvebirina civakê xwediyê wan xalên girîng ku me di destpêkê de îşare pê kir be.

3- Hikûmetê hewcehî bi hêzê heye, lê ev hêze çiye û çawa tê pênasekirin? Heke alav ya îmkana vê çendê hebe ku bi mifah wergirtin ji wan bikarin li ser alav yan xelk yan jî herêma derdora xwe xwedî bandor be yan jî viyan û îradeya xwe bi ser xelkê yan kom û rêxistinekê de bide sepandin yan jî biryarekê bide û bixe çarçoveya piraktîkê de, di rastî de xwediyê hêzê têne naskirin. Bi awayekî din " Hêz û Qawet" pêk hatiye ji îmkana xwedîbandor bûn li ser kom yan civakekê û sepandina vîn û îradeya xwe li ser herêma derdor û piraktîk kirina biryarên ku hatine dayîn. Di warê " Hêz û Qawet" û hegera peydabûna wê, di fesla pêncan de, em dê zêdetir li ser vê çendê rawestin.

**Fesla yekem:**

Jêderên hiqûqên bingehîn;

Hemû zanistek xwediyê jêderên taybet bi xwe ne ku kesên vekoler û pispor bi penahbirin bi van jêderan, dest bi kifşkirina bingeh û çawaniya peydabûna helwêstên têkildar kirine û teorî û bîr û hizrên xwe bi mifah wergirtin ji jêderên baskirî didin xuyakirin, hiqûqên bingehîn jî ji vê çarçoveyê ne cuda ye û xwediyê jêderên jêrîne:

**1- Zagona bingehîn**

jêderên herî girîng a vê riştê ji hebûna hiqûqê, zagona bingehîn e, zagona bingehîn bi awayekî weke Peymannameya Neteweyî û Mîsaqa Giştî tê hesibandin ku nîşana çarçoveya siyasî a welatekê ye û bi kurtî çarçoveya siyasî a civakê dide kifşkirin.

Qanûna bingehîn jêdera herî girîng a hiqûqên bingehîn e ku bi berhevdan tevî qanûnên bingehîn yên welatên cur bi cur, tevî her terz û awayên hizra siyasî û çawaniya peydabûna vê hizrê di çarçoveya cur bi cur a hêza desthilatdar de dide xuyakirin. Bo mînak: Bi xwandin û balkişandin bi ser zagona bingehîn a Îranê, tê xuyakirin ku desthilata siyasî a Îranê, desthilateke ku li ser bingeha ol û hizrên îdeolojîk hatiye avakirin. Herçiqas astê tewayî yan meşrû nebûna desthilatdaran, girêdayî bi nêzîk û dûrbûna wan bi bend û yasayên olî ve heye, lê rola xelkê di pêkanîna hikûmetê û rêxistinên siyasî yên wê, heya çi qasekê xwedî bandor e û ji aliyeke din, cihgirkirina edaleta civakî û pêkanîna civakeke xwedî edalet û wekhev, heya çi qasekê dibe armanca bingehîn a desthilatdarên welat.

Herwisa çarçove û pêkhateya hikûmetan ji qanûna bingehîn tê wergirtin. Lê gava mirov qanûna bingehîn a Îranê tevî yasayên bingehîn ên welatên din bide berhev, taybetmendiyên ku li serê hatine baskirin, dijberî û aloziya wan tevî zagonên welatên din zêdetir tê xuyakirin. Bo mînak: Di destpêka zagona bingehîn a welatê Japon de bi " avabûna dewleta meşrût li Japonê û vejîna hikûmeta împiratorî di janwiyeya sala 1868'an de hatiye eşkerekirin û di zagona bingehîn ku di sê novembera sala 1949'an de hate birêvebirin. Împirator" peydabûna dewletê û hevgirtina gel" hatiye hesibandin û hêza xelkê li ser hikûmetê pêkhatî bû ji xwastekên hundir yê neteweyî û parleman pêkhatibû ji du meclisên nûneran û şêwran ku endamên meclîsa nûneran çar salan carekê û endamên meclîsa şêwran şeş salan carekê tên hilbijartin.

Hemû liv û biryarên împeratoriya Japonê di îdarekirina dewletê de diviya bi hevhizrî û pesendkirina şanda dewletê be û berpirsiyara wan biryarane jî li stûyê şanda dewletê dibe.

Di zagona bingeîn a dewletên yekbûyî yên Amerîkayê de, navenda hêz û desthilatê di destê serok komar deye ku mafê weêtoyê derheq biryarên perlemanê heye û endamên perlemanê dixe nava nirxandin û vekolîna ducarkî a biryara wêto kirî û herwisa berpirsê dezgeha dadê dîharî dike û cihgirê yekem yê serkomar dibe serokê meclîsa sina be.

# Beşdariya Çalak Ya Jinan Di Kabîneya Nû A Dewleta Firansayê De



Roja înê 18'ê Gulana 2007'an, endamên kabîneya nû a dewleta Fransayê hatin ragehandin.

Li gorî biryara Nîkola Sarkozî, Serok Komarê nû yê Fransayê, hejmara Wezaret xaneyên Fransayê hatin kêm kirin û 15 wezîr dê kar û barên Wezaretan birêve bibin.

Hêjayî gotinê ye ku di kabîneya nû a dewleta Fransayê de, di nava wan 15 wezîrên hilbijartî de navê 8 mêr û 7 jinan dikeve berçav û eva yekemîn car e ku heta di welateke Ewropayî de jî hilbijartina wezîran bi vî awayî bibe. Di dewleta nû de Xatûna Mîşil Alîw Marî ku di dewleta pêşîn de berpirsyariya rêvebirina Wezareta Parastinê, weke berpirsa Wezareta Hundir, hate hilbijartin. Her wiha dana berpirsyariya Wezareta Dadwerî a welatê Fransayê bo xatûna Reşîda Datî ku di esl de Ereb e, nîşaneya encama xebata jinan bona pêkanîna civakeke wekhev û demokratîk e.

## Heştê Ji Sedî, Ya Telakê Di Nava Hevjînên Ciwan De Ye




Li gor hijmarên herî dawî yên telakê di Îranê de, 2091 daxwazên telakê di dadgehên Tehranê de hatine zanîn ku li gorî vê hejmarê, 80 li sedî ji xwaziyarên vê diyardeyê ew hevjîn in ku taze dest bi jiyana hevbeş kirine. Her wiha 9740 ji dosyeyên telakê yên taybet bi wan jin û mêran ku li ser daxwaza her du aliyan ji hev cuda dibin, di qonaxa dawî û daxistinê de ne.

Karnas û şarezayên warê telakê, sedema piraniya pirsgirêkên di navbera jin û mêran de, nebûna kar û pêşeyê hêja û kêrhatî dizanin.

## Nûnerê Urmiyê: 5/5 Milyon Kesên Akinciyên Bajar Û 2/5 Milyon Kesên Akinciyên Gundan Di Bin Hêla Xizaniyê De Ne

Abid Fetahî, endamê Komîsyona Tendurustiya Parlemana rejîmê, di hevpeyvîneké de tevî nûçegihanê parlemanî ê "ILNA"yê got: 5/5 milyon nifûsê Îranê ên akinciyên bajaran û 2/5 milyon kesên akinciyên gundan di bin hêla xizaniyê de dijîn.

Hêjayî gotinê ye ku li gor gotinên nûnerê Urmiyê di Parlemana Îslamî de, 8 milyon kes ji xelkê Îranê hejar û belengaz in û eva jî di halekê de ye ku avakerên rejîma Melayan, rejîma xwe weke hikûmeta hejaran dide nasandin û Ehmedînejad, Serok Komarê diyarîkiri yê rejîmê, birêvebirina dad û edaletê weke mijareke sereke di nava bernameyên xwe de cî kiriye.

**Wêneyek ji cezakirina hovane ya ciwanekî Îranî ji ber lixwenekirina kincên li ber dilê rayedarên dewletê di bin siya projeya tenahiya civakî!!!**
**Mesîne li stûkirina ciwanan û gerandina wan di nava xelkê de cezaya Komara Îslamî ya Îranê ye ku mirov matmayî dike!!!**



# Guneha Keça 12 Salî Çi Bû?!

**Azad Kurdî**

Xwendevanên delal! Di sîstemên totalîter û dijî gelî de, kuştin, rijandina xwîna mirovan û reşkirina çarenivîsa takekesan metod û rêbazek normal û edetî ye.

Ji aliyê desthilatdarên van cure pergalan ve, jiyan û qedera mirovan bê qedr û qîmet tê dîtin. Heke ez bibêjim tenê li welatê Mele û belalêdayî yê Îranê ku Komara Îslamî desthilatdariyê dike, di rojê de dehan kesên sivîl û bêtawan tên girtin, îşkencekirin, kuştin û wd..., me şaş negotiye! 28 sal e ku em her roj li benda bihîstina dehan bûyerên hov û nemirovane ên bi vî awayî li dijî civatên xelkê Îranê ne, di jiyana me ya di bin destê wê rejîmê de, eva ê bûye tişteke xwezayî û pir normal!!!

Kuştina keçeke 12 salî ya Belûç bi destê Efserekî hêzên Komara Îslamî a Îranê hiş li serê min bir û wijdana min hejand. Ez bawer im, her kesê ku ew nûçe bihîstibe yan niha bizanibe, dê hesteke nexweş wekî min hebe û dê birame û kûr bifikire ku çima gerek wiha be?!


Roya Saranî

Roja çarşem, 17'ê Gulana 2007'an, hêzên rejîma Îslamî a Îranê li bajarê Zahidanê – ser bi parêzgeha Sîstan û Belûçistanê ku akinciyên wî bajarî neteweya Belûç a xizan û bindest in – dikevin dû otomobêlek ji cura "Pejo" ku ciwanekî Belûç bi navê **Elyas Saranî**, dajot. Ji ber ku wî îcazenameya ajotkariyê tune bû, wî dixwest ji destê wan bireve. Elyas piştî ku digihîje mala xwe li taxê "Berq"ê li Zahidanê, ji otomobêlê tê xwar û xwe radestî hêzên rejîmê dike. Efserekî hêzên leşkerî ên rejîmê bi navê Kiştger dema ku eseh dizane, ajotkar Belûç e, di cî de êrîşe dike ser xwûşka Elyas ya 12 salî a bi navê **Roya Saranî**, ku di nav otomobêlê de bû. Wî bi lêxistina çend guleyan li ber çavê xelkê, ew keça sivîl û bêsûç dikuje. Roya, keça be xal û xerez, bi biryayê xwe re ji ceribîna xwendinê ya dibistana navîn vedigeriya malê, lê bi vî awayê hov û dirindane jiyana wê hate standin û tevlî karwana goriyên cinayetên reş û nemirovane ên dîroka tarî a 28 salî ya Komara Îslamî a Îranê bû.

Ne pêwîst e ku ez bi hûrî û berfirehî li ser sedem û delîlên vê cinayeta hov û hezaran cinayet û komkujiyên din ên van desthilatdarên xedar û zordest rawestim û hest û ramanên xwe bînim ser rûpelên kaxizê û ...

Di dawiya vê nivîsê de, ez tenê vê yekê dibêjim ku bi raya we eva heq û çarenivîsa keça xwendekar û sivîl ya Belûç(Roya Saranî) û hezaran goriyên din yên neteweyên Îranê, nemaze gelê Kurdan eku rojane bê sedem tên kuştin? Ma sûç û gueha wê ciwana nûgihîştî çi bû?

Ez qezawet û fikirîn û biryarê ji bo we xwendevanên hêja dihêlim...

# Ciwanên Kurd Goriyên Siyasetên Komara Îslamî

**Hemîd Muxtarî**
tishk_ronahi@yahoo.com

Heke mirov ji wan weşanên pêwendîdar bi bûyerên civaka Îranê binêre, eyan dibe ku diyarde û kirîzên wekî xwekuştin, jihevveqetiyan, îtiyad, helatina mêjiyan, bêkarî, xizanî û… gihîştiye hedê xwe.

Herçend zaf nivîs û pirtûk li ser van diyardeyan û ew zext û givaşên rejîmê bo ser civaka Îranê hatine nivîsandin, lê ez bawer im ku mirov herçiqas li ser van diyarde û kirîzan bibêje û binivîse û raya giştî a cîhanî ji van pirsan agehdar bike, hêj kêm e.

Roj nine ku li Îran û bi taybet di Kurdistanê de çendîn ciwan bi egerên cur bi cur wekî bêkarî, tûşbûn bi madeyên bêhişker, mereq, bêhêvîtî û… dawiyê bi jiyana xwe neînin.

Birastî sedema xurtbûn û berfirehbûna diyardeyên han di Kurdistanê de vedigere ser çi? Rêçareyên jinavbirina wan çi ne?

Ger em lênihêrîneke bi ser dîroka gelê Kurd bi giştî û Kurdên Îranê bi taybetî bikin, ji mere xuya bibe ku Kurdistan herdem çepera azadixawzî û xebat li dijî zulm û zordariyê, ne tenê bona neteweya Kurd, belkî ji bo gişt gelên Îranê bûye û di vê rêbazê de hezaran kesî jiyana xwe goriyê aştî û azadiyê kirine.

Lewma rejîma Îranê bona bêhêvîkirina wan bo gihîştin bi



armancên neteweyî û azadîxwazane û dûrxistina wan ji pirsên siyasî, bi fend û fêl û pîlanên xwe ên nemirovane û dûr ji her orf û yasayekê weke tûşkirina wan bi madeyên bêhişker, pêkneanîna delîveyên karî, pêkanîna zext û givaşan bo ciwanan, leşkerîkirina Kurdistanê, dixwaze ciwanan ji xebat bona bidestveanîna azadiyê bê hêvî bike û wan ji vê rêbazê dûr bixe.

Rejîma Îranê vê dawiyê jî bi pîlaneke din anku piştevanîkirin ji girûpeke terorîstî bi navê "Xebatkarên Ola Îslamê" dixwaze ciwanên Kurd bo encamdana kiryarên terorîstî hay bide. Xwefiroş, qazancperest û endamên wê li dijî daxwazên neteweyî ên xelkê Kurdistanê dipeyvin û dixwazin bi vê çendê ciwanan ji xebat bona gihîştin bi armancên serbestiya netewî ên xwe dûr bixin û ber bi encamdana karên terorîstî bibin. Taqima navhatî bi piştevaniya rasterast ya rejîma Îslamî û bi rênîşaniya Îdareya ewlekariyê çalakiyên xwe dimeşîne.

Ji aliyeke din ve nebûna karxaneyên berhemanînê di Kurdistanê de bûye sebeb ku ciwanên kurd bona bidestveanîna kar, ber bi bajarên dinê ye Îranê weke Tehran, Esfehan û… bimeşin û bi vî terzî ji xebat û çalakiyên siyasî tên dûrxistin û dikevine nava telika asimîlasiyonê de. Rejîma Îranê bi van pîlanên xwe kariye heya astekê serkeve, lê nekariye xebata wan bona bidestveanîna mafên xwe bide sekinandine.

Diyare îro rojê tenê neteweya Kurd nine ku di xizanî û hejariyê de dijî, îro rojê ew zextên aborî gişt xelkê Îranê mandî. Hêla xizanî û hejariyê roj bi roj zêdetir dibe.

Ji aliyeke din ve tepeserkirina xwendekar,jin, karker, mamosta, netewe û gişt tex û qatên civakê, bûye sebebê nerazîbûna zêdetir ya xelkê Îranê.

Ji aliyê din ve siyasetên derekî ên rejîmê derheq çekên etomî, destavêtin di kar û barên welatên cîran bixasmanî Îraq, Lubnan û Felestîn, encamdana karên terorîstî, piştevanîkirin ji girûpên terorîstî û… bûye sebeb ku Îran bikeve bin dorpêçên aborî yên navneteweyî de.

Herwisa ne ewlehîbûna Îranê bûye sebebê derkeftina piraniya kompaniyayên bîhanî û heta şîrketên Îranî di vî welatî de. Bêşik encama siyasetên han, berî her tiştî bandora xirab li ser rewşa aborî a xelkê Îranê dike.

Herwisa tevî kirîzên han pirsgirêkên hundir ên rejîmê jî xurtir bûne. Girtina Mûsewiyan, baylozê rejîma Îranê yê berê, yek ji mînakên pêvajoya han e. Herçiqas ku astê zext û givaşên navneteweyî li ser Îranê berfireh be, pirsgirêk û arîşe di nava rejîmê de jî xurttir dibe.

Di dawiyê de divêt were gotinê ku tenê rêçareya ji nav birina kirîzên aborî di Îranê de berî her tiştî hewcehî bi hebûna demokrasiyê di vî welatî de heye. Demokrasî bê şik dikare çareseriya zaf pirs, kirîz û diyardeyên xelkê Îranê ewle bike. Dema demokrasî hebe, dada civakî, ewlehiya civakî, wekheviya mêr û jin, mafên neteweyî û zaf pirsên din dê werin çareserkirin. Bona pêkanîna civakeke demokratîk hewcehî bi hevgirtin û hevkariya gişt xelkê Îranê, bi bernameyeke bingehîn û usûlî û bi hevahengiya gişt partiyên demokrat û azadîxwaz ên Îranê heye.

## 5 Keç Û Kurên Ciwan Li Kurdistanê Rastî Xwekuştin Û Xweşewitandina Hatin

Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê da zanîn ku 3 jin û keçek bi navên "**Wehîde.P**" û "**Seîde.D**" û "**Êntiha.T**", li bajarên Urmiyê û Merîwanê de xwe şewitandin û du xortan jî li bajarên Merîwan û Sine de dawî bi jiyana xwe anîn.




Keçeke ciwan ya Kurd bi navê "**Wehîde.P**", xelkê bajaroka Elwaca Urmiyê bi egereke ne diyar xwe şewitand û dawî bi jiyana xwe anî. Her di vê derheqê de "**Seîde.D**", 15 salî, xelkê gundê Serşîwa Merîwanê û "**Êntiha.T**", xelkê Merîwanê dest dane xweşewitandinê û di encam de Seîdê jiyana xwe ji dest da û "Êntiha" jî ber bi neweşxaneyê hatiye şandin û egera mirina wê pir zaf e.

Her di vê derbarê de xortekî 18 salî û xwendekar bi navê "**Ebdulah.B**", xelkê Merîwanê, xwe daliqand û di bajarê Sine de jî tê gotin ku xortekî din seba xizanî û feqra malî li kêleka pira bi nav û deng ya bajarê Sine li hember çavê xelkê agir berda laşê xwe û wî jî dawî jiyana xwe anî.

## 317 Kes Di Parêzgeha Kurdistanê De Hatine Girtin

Li gor gotina fermanderê hêzên întîzamî yê parêzgeha Kurdistanê, di çarçoveya projeya "ewlehiya civakî" û "xebat li dijî xirab lixwekirinê" de di heyamê meha borî de, 317 kes hatine girtin.

Hemîd Etayî, di hevpeyvîneke de tevî nûçegihanê "Karê Îran" ragehand ku: Di çarçoveya terha "ewlehiya civakî" û "xebata li dijî xirab Lixwenekirinê" di parêzgeha Kurdistanê de, 317 kes hatine girtin, 1849 ji jin û keçên ku lixwekirina Îslamî nebûn, hatine agehdarkirin, 350 kes ji xort û mêrên ku kincên neyasayî li xwe kiribûn! hatine şîretkirin û 206 ciyên kasibiyê hatine daxistin.

Navhatî herwisa zêde kir û got: 6 dukanên arayêşgehên jinan seba



liberçavnegirtina rênîşanên olî, 29 dukanên telefonên destan, seba danîna muzîk û wêneyên ne şerîî li ser telefonên destan, 14 kafînetên înternetî, seba seredana malperên ne exlaqî û herwisa kafîşapek hatiye daxistin, 14 kes jî seba têkiliyên neşerî hatine girtin.

Hêjayî gotinê ye ku ev xebatên wan tenê hêcet û mihane û berteskkirina azadiyên takekesî ye.

# FEDAKARÎ Û FÊDEWARÎ

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Gel, nîjad û neteweyên dinê, di tu demên dîrokî de geşedaniyên xwe yên civakî û komelayetî bi carekê re bi dest nexistine. Hêdî hêdî û hin bi hin pêşve çûne û gihîştine asta neteweyîbûn û şarezahîbûnê. Şarezahîbûna gelan, li gorî hêvotina çand û huner û wêjeya wan dişêwe û dirûv digire. Jixwe çand û şaristaniya civakan jî heta îro xwe bi vî awayî parastiye û pêşve çûye.

Şaristaniyên mezin, bi saya zimên û perwerdehiyê pêşve diçin û dexma xwe li dîroka mirovahiyê didin. Gava ku zimanê civakê pêşve neçe, çand, huner, raman û wêjeya civakê jî pêşve naçe. Kom, civat û xilbeyên bê nasname, ne dikarin tu sûd û fêdeyê bidin xwe û ne jî bidin kom û civakên dora xwe. Çawa kesê/a bê nasname wekî takekes nayê hesibandin; kom û xilbeyên bê nasname jî wekî civak nayên hesibandin. Ji bo wê, gel dibe, civak dibe, divê berî her tiştî di warî sazîbûna mezringeyî de xwe bi mirovahiya dinê bide nasandin û çespandin. Heke na, zêde tu sûd û fêdeya guheraniya zagonên bingehîn ên fermî û naskirina mafê mirovan ên ser rûkê kaxizê jî namîne.

Wekî ku bapîran jî gotiye "îro, roja sebebê ye". Heke îro civakên bênasname bi seferberiyeke neteweyî dest navêjin karê ziman wêje û hunera xwe û her wiha û li sazî û dezgehên xwe yên çandî xwedî dernekevin -ne çê ye ku mirov bi reşbînî li meseleyê binihêre, belê- mixabin dibe ku nav û dengê wan û bêhn û beyta wan li ser rûyê dinê nemîne. Û cehd û keda wan a salan bi avê de biçe. Çimkî îro desthilatdariya dinê li ser navê globalîzmê ketiye nav kar û hewldana çandeke yekalî û yekpare. Û dixwaze hemû gel û civakên dinê di nav vê bişavtina nû ya gerdûnî de bimehîne û têk bibe. Li aliyê din jî, îro sistbûnî, cangiranî û tiraliyeke malxirab serdestî rêxistin û komeleyên neteweyan yên sivîl bûye. Herkes li benda yê/ya din e. Tu kes di eynî xwe re dernaxe û nabêje "ma sazî, komel û dezgehên civakî dikarin tena bi serê xwe, xwe bidin bin vî barê giran ?" An "dê çawa rê li ber van bişavtin û komkujiyên çandî bê girtin?"

Bi rastî dem ne dema ku hin bikin û hin rûnên e. Kes dibin, civak dibe, divê her kes bi tevayî xwe bidin bin vî barî û dîsa bi tevayî rola xwe ya dîrokî bileyîzin

Bi saya zanîn û teknolojiyê îro gelek kes fêrî xwendin û nivîsandina zimanê xwe, lêpirsîn û lêgerîna çand û hunera xwe ya neteweyî dibin. Lêxwedîderketin û parastina ziman û çanda neteweyî, ji bo parastina civakên bindest tiştekî pêwîst û girîng e. Ango ev peywir û binbariya payedar û pîroz ji bo her mirov û civakên bindest hewcedariyeke dîrokî ye. Divê hemû mirovên bindest xwe di vî warî de berpirsiyar bihesibîne. Çi ji destê kê tê divê qet texsîr neke û di vî warî de bibe alîkar. Her kes, dikare li gorî merc û derfetên xwe bi awayekî piştgirî û alîkariya vî karê pîroz bike. Her mirov hewcedarî fêrbûn û fêrkirina zimanê xwe yê zikmakî ye. Di dem û domaneke wisa girîng de, divê her mirovê/a bindest hem bibe mamoste hem jî şagirtê zimanê xwe yê zikmakî. Lewre fêrbûn û bikaranîna zimanê mirov yê zikmakî, dê bibe parastina nirêxên wî/wê yên neteweyî û parastina nirxên neteweyî jî, dê bibe hinceta parastina çand û hunereke resen û cihêwaziyeke gerdûnî.

Ji bo wê divê cehd û hewldanên gelên bindest ên di vî warî de bi awayekî domdar û bêdeman heta demekê dirêj bidome. Heke hemû gel û civakên bindest îro dest bi vî karê pîroz bikin û xwe ji dil bidinê, dê ew qasî jî zû bi ser bikevin û sûd û fêdeyê bidin çanda civakên cîhanê. Û her wiha dê zimanê xwe jî ji bişavtin û dirûvandina darê dinê rizgar bikin. Wekî din jî dê gelek ber û berhemên hêja yên çandî hunerî û wêjeyî jî diyarî mirovahiya cîhanê bikin.

Ji roja ku mirovahî bi xwe hay bûye û heta îro, li ser mirovên pejnkar û hestyar gelek astengî û çewsandinên ramyarî û aborî pêk hatine. Îro jî heman ferset wekî kelem û astengiyeke tundwar, pêşiya gelek kesên dilsoz û hestyar digire. Tê zanîn ku hemû civak û rêxistinên demokratîk ên pêşverû, bi taybetî hem ji aliyê daringî û hem jî ji aliyê arişî ve ditengijin. Ji bo wê her gav hewcedarî bi piştgirî û alîkariya gel û kesên pejnkar û pirsiyardar heye. Sazî, hem ji aliyê gel, bi piştgiriya gel û hem jî ji bo gel û bi saya gel têne avakirin. Ev saziyên ku bi geşedeniya çand û zimên re bandoreke erênî li ser jiyana civakê dihêlin, her gav bêne parastin. Bêguman, ev jî rasterê girêdayî merc û derfetên aborî û piştvaniya gel a daringî û arişî ye.

Wekî ku Apê Osman Sebrî dêbêje
**"Ez ji bo gel; ne gel ji bo min."**

Kaniya Helbestan

# Gotin



**Besam Mistefa**

**-Ji Riyad Salih el-Huseyn re-**

I-
Gava ku
Di navbera min û jiyanê
de
Sînor cîbicî kirin–
Min bi gotinên te
Ew her şev
Bombar kirin...
Sibehê,
Min û jiyanê hev
Hembêz dikir

II-
Her kes bû dijminê te
Tu
Bû hevalê her kesî.

III-
Jiyan sî salî li benda
Rondikekê ji çavên te bû
Dema dît ku bê sûde ye,
Xwe di sihî de...kuşt

IV-
Sê gotin bi dizî
Ji dîwaneka te derketin
rojekê...
Yek ji wan di deryan de
Bû av
Yek di tifingan de
Bû gulle
Ya dî li ezmanan
Bû stêrk

V-
Şevê dî
Di xew de
Min te dît
Lê
Tu ne tenê bû
"Lorka " jî bi te re bû....!

# Yekîtiya Ciwanên Demokrat Ên Kurdistana Îranê Yekemîn Salvegera TISHK TV Li Kurdistanê Pîroz Kir

Roja pêncşemiyê, di berwar 3/3/1386'an de, YCDK Îranê li binkeya deftera siyasî a PDK Îranê, rê û resmeke berfireh bi beşdariya sekreterê giştî yê YCDK ÎRANÊ û sekreterê giştî yê YXDK Îranê û tev endamên desteya rêweber a YJDK Îranê û endam û tagirên van rêkxistinan û hejmarekî pêşçav ji kadro û pêşmerge û malbatên birêze wan birêwe çû.

Destpêka rê û resmê bi sirûda TÎŞK dest pê kir û piştre birêweberê rê û resmê, helbestvanê ciwan yê Kurd, Şerîf Felah bixêrhatina pişikdaran kir. Piştre navbirî pexşanek derheq bi "TISHK TV" ku tê de Rola "TISHK TV" weke televîzyonek neteweyî û hewara gelekî bindest û pencereyek ber bi azadî û demokrasiyê û herwiha dengekî tijî ji evîn û gelekî aştixwaz pênase kir.

Piştî vê çendê, peyama YCDK ÎRANÊ ji aliyê Karwan Şerefî endamê Şêwermend yê komîteya giştî a birêweberî hate pêşkêş kirin. Piştre peyama YJDKÎ ji aliyê Necîbe Rewansûrî û Peyama Kora Perwerdehî û elimandinê ji aliyê Nermîn Osmanî we hate pêşkêş kirin.



*Çend dîmen ji rê û resma pîrozkirina 1 saliya TISH TV*

Koma govend û dîlanê a Şeva Yelda bi rêwebirina hin govendên kurdî bala pişikdaran zêdetir bo aliyê xwe rakêşandin û xemlekî taybetî dane rê û resmê.

Cejna 1 saleya jiyê tijî ji destkewt û serbilind a telefizyona TISHK, ew telefizyona ku salek e bûye hewarek bo hemî netewên bindest, ew TV a ku bûye xudîka serbilind bûna hêvî û armancên kurd û bûye tirîbonek bo berevanî kirin ji mafên mirov û gaziya demokrasiyê di Îranê de, di nava şahî û cergebesa ev kurdên ku dilê wan bo azadiya welat lê dide, bi dawî bû.

Hêjayî gotinê ye ku ew rê û resme heya 2 demjimêran dom

# Roja Çanda Kurdî
## Li Zanîngeha Bonê

Bi amadebûna dehan xwendekarên Kurd û biyanî. Komeleya Xwendekarên Kurdên Sûrî (Raman), çalakiya "Roja çanda kurdî" li Zanîngeha Bonn a Elmanî sazkirin. Roja 19.05.2007 Komeleya Xwendekarên Kurdên Sûrî ya bi navê (RAMAN) çalakiyeke hêja bi navê 'Roja çanda Kurdî' li zanîngeha Bonn ê sazkirin. Di serî de hevalên RAMAN ê bi herdu zimanên Elmanî û Kurdî bi xêrhatina mêvanan kirin.

Piştre peyva komeleyê hat pêşkêş kirin û tê de behsa bername û çalakiyên Raman hat kirin. Paşê fîlmekî dêkomêntî ya deh xolekî bi zimanê Elmanî, li ser Kurdistanê hat nîşandan. Piştî vê yek demjimêrek ji bo bihênvendan û xwarinên Kurdî yên heremên cudayên rojavaya Kurdistanê hat terxankirin, ku bi destên xwendekaran hatibûn çêkirin. Piştî wê bihênvedanê hinek dîmenên siruşt û çiyayên Kurdistanê hatin nîşandan. Herwesa li jêr navê 'Hêvî' hin wêneyên taybet bi Başûrê kurdistanê ve hatin pêşkêşkirin. Piştî nîşandana fîlm û wêneyên li ser Kurdistanê, genheşe û danûstan dinavbera hevalên Raman û xwendekarên amadebûyî de çêbû û hevalên Raman ê jî gelek bi ciwanî bersiva pirsên amadebûnyan yên li ser Kurdistanê dan. Piştî bi dawî hatina danûstanê, dema nîşandana mode û cil û bergên Kurdî yên 'Zaro, jin û mêran' hat ku bi rengekî ciwan hatibûn helbijartin û bûn cihê dilxweşiya mêvanan. Li dawiyê jî stranbêja deng xweş 'EvînaWelat' bi dengê xwe yê zelal, çend stran ji mêvanan re pêşkêşkirin û vê çalakiyê bi dawet û semayê dom kir.

Bi rastî wan xwendekaran bizaveke hêja kir ji bo nîshandan û nasandina kultura Kurdî, lê tu kes ageh ji wan nine û ew mîna Pêşmergeyekî veşartîne. Mixabin ku telefizyonên Kurdî jî li dervey welat, bêtir giringiyê didin dawet û şehyanan û çalakiyên kurdan yên di bingehên zanistî de, pişt guh dixin!!

**Jêder: Malpera "Nefel"ê**

# Filmê "Davîdê Tolhildan" Li Festîvala Filman Ya Krakov A Poloniya

Piştî ku li festîvalên filmên Kurdî li London û Berlîn û li festîvla Solothurn, festîvala filmên **Mîrîtiyên Erebî ên Yekbûyî** (Film li wir hate qedexkirin) û piştî ku di festîvala filmên Aljazeera de cih girt, niha filmê derhênerê Kurdistanî, Mano Xelîl ya bi navê "Davîdê Tolhildan" başdarî festîvala filman a Krakov li Poloniya dibe ku ji 31'ê Gulanê heta 5'ê Hezîranê dikşîne.

Festîvala bi nav û deng a Krakov a Polonî, filmê kurdî **"Davîdê Tolhildan"** ê derhêner **Mano Xelîl** ji bo beşa hilbijartina navneteweyî qebûl kir.

Weke ku tê zanîn, ev film li ku tê nîşandan, bi goşek mezin bala xelkê dikişîne ser xwe. Berî niha li mezintirîn bajarên Swîsra weke "Zurich", "Losanne", "Basel", "Bern", "St.Galen" û "Solothurn"ê di sînemayê de hatibû belavkirin û bi dilxweşî hat pêşwazikirin. Berî çend rojan li Hamburg û Stutgarta Almaniya jî hate nîşandan.

Ev cara yekemîn e, ku filmekî Kurdî (Dokumentar) bi rengekî profesîonal, li ser şoreşa Kurdistana Bakûr, yan jî kurdistana bin destê Turkî bi fermî li Ewropa û li festîvalên cîhanê tê pêşwazîkirin. Her ku rêjîma Turk a faşîst bi hemû derfet û mercên xwe şerê vê filmê dike û dixwaze dengê azadiya Kurdan bifetisîne, heta roja îro bi dehan name şandine bo Wezareta Rewşenbîrî a Swîsrayê ku têde dewleta Turk û balyozxaneyên wê dixwazin ku ev film bê sekinandin, ji ber ku Wezareta Rewşenbîrî ev film finnse kiriye, lê her namên wan bê bersiv dimînin.


Mano Xelîl

Tenê berî demeke kurt ev film başdarî festîvala filman li Mîrîtiyên Erebî bibû. Lê ji ber mudaxeleta rejîma Turk û zexta wê li ser hikûmeta Mîrîtiyên Erebî ên Yekbûyî û ji bo ev mesele neba kirîzak mezin di navbera Mîrîtiyên Erebî û Tirkî de, biryar ji Wezareta Derve a Mîrîtiyên Erebî ên Yekbûyî hatibû danîn ku Film nehê nîşandan û ji festîvalê çend seetan berî weşanê bê kişandin. Filma "Davîdê Tolhildan" çîroka xortê Swîsrî Davîd Rouiller, Kurê serokê dadgha Federal a Swîsra a berê ye. Davîd dev ji jiyana xwe a komfort li Swîsra berda û ev bûye der-dora şeş salan, cihê xwe di nav refê Gerîlayên Kurd de dîtiye. Film li ser jiyana vî xortê Swîsrî diaxive û ev bi xwe mînak e ku temaşevan jiyana Gerîla bi temamî nas bike. Dayka Davîd ji Swîsra berê xwe dide çiyayên Kurdistanê û ew jî dibe şahidek qanûniya berxwedana neteweya kurd û heqê wî di jiyanek azad û Serbixwe de.

# Kovara Araratê Û Çend Gotinek



**Kavûs Ezîzî**

Piştî serkevtina şoreşa gelên Îranê di sala 1979'an de û destpêkirina xebta eşkere ya PDK Îranê û pêkhatina komîteya Araratê, kovarek bi navê **Ararat** di sala 1361 (1982)'an de weke organa vê komîteyê hate belavkirinê. Vê kovarê karî di heyamek kurt de cihê xwe di nava civakê de veke û gelek tiştên balkêş di warên siyasî, civakî, helbest, dîrokî, sirûdên şoreşvanî û jiyannameya şehîdan de, belav bike.

Kovara Ararat bi herdu zimanên Kurdî û Farsî dihate weşandin û sernivîskarê vê jî kekê **Erşed Muradî** bû û Desteya Nivîskar jî pêkhatibû ji birêzan: Têmûr Muradî, Şehîd Elî Kaşifpûr, **Mizefer Begzade** û **Ferec**, karê tîprêzî û teksîra wê jî **Husên Kerîmî** birêve dibir. Serberga kovara Araratê bi wêneyeke çiyayê Agirî hatibû xemilandin û bi Farsî hatibû nivîsîn, Ararat organa Komîteya Ararat a PDK Îranê.

Di yekemîn hejmara vê kovarê de cuda ji çend mijarên siyasî ên rojê û nûçeyên herêmê, şerên hêza Pêşmerge û biserhata şehîd Niho Paşa, sirûdeke şoreşvanî jî bi navê "Pêşmergê gelê xwe me" têde hatibû weşandin. Di hejmara 2, 3, 4'an a Kovara Araratê de dîsan gelek babet û mijarên cur bi cur û nemaze serpêhatiya şehîd Mela Dawûd Xesmî, şehîd Îsmaîl Rehberî û şehîd Kerîm Dalanhisar hatibûn weşandin.

Lê mixabin ev kovara bi sedema cudabûn û nemana hejmarek ji nivîskarên vê kovarê hate sekinandin û ez bawer im ku nimûneyên wan di arşîvan de jî nehatine parastin.

Sal hatin û derbas bûn û heya em gihîştne sala 1373 (1994)'an ku wî çaxî baregehên hêza Pêşmergeyên Kurdistanê li Basirmê a ser bi herêma Hewlêrê bû. Wê demê ez ketim bîra belavkirina rojnameyeke dîwarî û min daxwaz ji kekê Mehmûd Deştî, berpirsê wê demê yê melbendê kir ku îzna belavkirina wî karî bide me û gorî îmkanê harîkariya me bike. Ewa bû ku îzna me hate dan û me rojnameya dîwarî a bi navê **Ararat** belav kir, sitafa berhevkar ya vê rojnamê jî pêkhatibûn ji birêzan: **Kavûs Ezîzî**, **Enwer Kuhensal**, **Ezîz Muradperest** û **Sidîq Derwîşî**. Ev rojname dîwariye her hefteyê carekê dihate weşandin û gelek mijarên cur bi cur têde dihatne belavkirinê.

Vê rojnamê jî heya 12 hejmaran û derkirina paşgireke taybet bi 8'ê Adarê hate domkirin. Hewceye bihê gotin ku karê dîzayn û wîrastariya rojnamê li stûyê min de bû û di hemû hejmarekê de jî karîketorek taybet dihate weşandin ku ev jî **Şehîd Bextiyar Sergerdan** berhev dikir.

Lê mixabin sedem rawestana vê carê jî dîsan ji hev veqetiyana her du Komîteyên **Selmas** û **Urmiyê** bû ku her yek ji me di komîteyekî cuda de erk û karên xwe bi cih digehand û em ji hev hatin dûrxistin.

Piştî kongireya 11'an a PDK Îranê û rêxistina nû a partiyê, Kemal Kerîmî weke berpirsiyarê beşa pêrwerdehiya navenda 3'ê hate dîharîkirinê û ez jî weke harîkarê wî hatim nasandin. Lê dîsan jî li wir min pêşniyara derxistina vê rojnameyê kir û jî hêla navhatî ve hate pejirandin. Lê wê demê me li ser navê vê rojnameyê tevî hevalan hin bîr û hizrên cuda hebûn. Hin heval li ser vê baweriyê bûn ku bila navê vê bibe **Derya** û min jî li ser navê **Agirî** tekez dikir. Lê bi her awayekê be navê Agirî hate pejirandin û hejmara yekem a rojname dîwarî a Agirî bi gelek mijarên cur bi cur û bi harîkariya birêz Sidîq Derwîşî û hevalek din hate weşandin. Lê mixabin vê carê jî cudabûn bû nesîbê min û min rêya xerîbiyê girte pêşiya xwe û ez ketim xerîbiyê.

Hevalên hêja merema min ji nivîsandina vê mijarê eva bû ku bîranînek be ji kar û xebata hevalên me yên berê û pîrozkirinek be ji bo wan kesên ku di rojnameya Agirî de kar dikin.

Herwisa min xwast bibêjim ku her tiştekê pêşîneyek heye û pêşîneya rojnameya Agirî jî ev çend nimûneye bûn ku me qala wan kir. Ewa jî dîsan domkirin û pêşveçûna xebata gel û Pêşmerge ye ku tu car ranewestaye û nifş bi nifş pêşve diçe.

Ez di dawiyê de hîvadar im ku rojek bihê ku Agirî di Rojhilata Kurdistanê de bi azadî û rojane bihê weşandin û vî çaxî serbilindî bo wan kesane ye ku ev karwane heya serkevtinê domandine.

# Grûba Kurmancî Bû 20 Salî

**KURMANCÎ**
*rojnameya taybetî ya Enstîtuya Kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî*

Grûba Kurmancî ya Enstituya Kurdî ya Parîsê li Herêma Kurdistanê li Bajarê Duhokê civîna xwe ya 40. lidarxist û 20 saliya xwe pîroz kir.

Zimannas û lêkolînerên kurd ku ev hefteyek bû ku li Jiyan Otela Duhokê diciviyan, civînên xwe roja 20'ê Gulanê bi dawî kir.

Di pêvajoya hefteyekê de beşdarên civînê li ser navên gul û gîhayên Kurdistanê û herweha li ser peyvên rojnamevaniyê xebitîn.

Hêjayî gotinê ye ku ji seranserê Kurdistan û Ewropayê, 24 zimannas û botanist û rojnameger tev li civîna 40'î bûn.

Di dawiya civînê de ji bo 20 saliya civînên Grûba Kurmancî şahiyeke pîrozbahiyê jî hate lidarxistin û xelat li endamên Grûba Kurmancî hatin belavkirin.

Hêjayî gotinê ye ku Grûba Kurmancî ji şeş mehan bi carekê dicive û di pêvajoya hefteyekê de behsa gellek mijarên terminolojiya kurdî dike û hemû xebatên xwe weke raporekê di Kovara Kurmancî de belav dike.

Heta niha zêdetirî 60 endam tevlî civînên Grûba Kurmancî bûne.

Di şahiya pîrozbahiyê de Serokê Enstituya Kurdî Kendal Nezan û berpirsiyarê Grûba Kurmancî Reşo Zîlan jî herkê axaftinek kir û da zanîn ku hemû hejmarên Kovara Kurmanciyê dê weke cildekî 40 hejmarî bêne çapkirin.

**Jêder: "TISHK TV"**




**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**



Gotûbêjên Bêencam

# Nexşeyek Din Li Ser Kurdistanîbûna Kerkûkê




Li gor malpera "pukmedia"ê wênekêş û nexşesazê bi nav û deng yê Holendî, "Isaak Trion" di sala 1760'ê de nexşeyek çêkiriye ku pir eşkere tê dîtin ku Kerkûk bajarekî Kurdistanî ye.

Eva jî di çarçoveya wan 60 nexşeyan de tê ku navborî bo welatên din yên cîhanê weke Amerîka, Ewropa, Kanada û wd... kişandiye. Niha ew nexşe di pirtûkxaneya pirtûkên kevin ya bajarê Axin ya Almaniyayê de ne û tên firotin.

Berê jî nexşeyeke din ku bi dest hatiye çêkirin li serdema împeratoriya Osmaniyan de hatiye belavkirin. Ew nexşe di serdema Sultan Ebdulhemîdê duyem de di sala 1893'ê de hatibû çêkirin û têde diyar bû ku Kerkûk li naverasta Kurdistanê ye.

Niha jî nexşeyek din ya Kurdistan, Îraq, Turkemennia(Turkiyê) û Sûriyê kete dest ku vedigere bo sala 1760'ê. Di wê serdemê de ku împeratoriya Osmaniyan hikûm dikir, navê Turkiyê û beşê Ereb yê Îraqê tu nebû.

Nexşe, Kurdistanê ji beşên din yên Îraqa Erebî cuda dike û navê Turkiyê jî di wê serdemê de bi Turkemannia bi nav dike. Ew jî ji bilî bi sedan belgeyên din û nexşeya Osmaniyan, belgeyeke din e ku Kurdistaniyeta Kerkûkê îsbat dike û bi zimanê Erebî û Îngilîzî tekîd dike ku Kerkûk bajarekî Kurdistanî ye.

Herweha li gor belgeyekî din ku ji raporeke Komîsyona Cîgirkirina xwendingehên Kurdî li parêzgeha Kerkûkê dest ketiye û bi fermana hejmara 3631 di 14.03.1960'ê de ji aliyê rêveberiya Perwerdeya Parêzgeha Kerkûkê ve hatibû encam dan, îşare dike ku li Kerkûkê hejmara xwedevanên Kurd zêdetir e ji xwendevanên neteweyên din û wiha dide zanîn:

Xwendevanên Kurd: 13 633 kes
Xwendevanên Tirkmen: 12 404 kes
Xwendevanên Ereb: 6571 kes

# VÎN TV

## Tevlî Karwanê Medyaya Kurdî Dibe

Malpera diyarnamê diyar kir kanala esmanî a **VÎN TV** dê di nava du mehên li pêşiya me de dest bi weşana xwe ya TESTê bike.

Li gorî agahiyan VÎN TV dê di warê berhevkirin û sazkirina pirogramên hunerî û rewşenbrî xabtên xwe bimeşîne.

Birêz Kawe Rêkanî, rêvebirê Kenala Vîn TV ji bo Malpera Sema axivî û diyar kir ku "VÎN TV Televîzyoneke hunerî û çandî ye û dê girîngiyê bide çand û Hunera Kurdî. Armanca wê ew e ku xizmeta hunerê li her çar aliyên Kurdistanê bike û dê bibe pirek di navbera hunermendên kurd û xelkê Kurdistanê."

Herweha got: "VÎN TV Dergehek e ji bo alîkariya hunermendan û dê bi şêweyekî pêşkeftî û bi teknîkeke nûjen karê xwe bike. Armenca me ew e ku em (rengvedana civaka Kurdistanê bin).




Her weha em dixwazin bêjin ku em Kenaleke Serbixwe ne û ne girêdayî çi aliyên Siyasî ne."

Li ser navê wê jî got ku merem ji vê kenalê, Viyan e bo her çar perçên Kurdistanê. Vîn evîn e û evîn ji tiştê herî xweş e di jiyana mirovan de, pêwîstiya me bi vîn û evînê heye ta ku em bikaribin Kurdistaneke mezin ava bikin. Em bi riya televîzyona xwe dixwazin wê evîna mezin ava bikin û wan sînoran bişkînin û mala mezin ya hunermendên kurd ava bikin.




# Dûkela Cixarê Zarokan Tûşî Nesaxiya "Rebo"yê Dike

Li gor lêkolînên nû, berfirehbûna diyardeya cigarekêşanê li midehê sedsala borî û niha li cîhanê de parekî zaf ji zarokan tûşî nesaxiya "Rebo" (bêhntengî)yê kiriye.



Nesaxiya han di halê zêdebûnê de ye û bêtir di welatên pêşketî û pîşesazî de xurt e. Herwiha li welatên cîhan sêyemî de jî rû li zêdebûnê ye.

Li gorî agahiyan pêwendiyek bihêz di navbera cigarekêşan û bilindbûna asta tûşbûn bi nesaxiya Reboyê heye. Tûşbûna zarokan bi vê nesaxiyê di Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê de peywendî bi cihê jiyankirina wan ve heye, bi taybet yên ku tevî kesên cigarekêş de dijîn û dûkela cigarê hildimijin û ev dûkela sedema eslî û bingehîn ya tûşbûna zarokan bi nesaxiya